hejmar 48 - bihar 2011

# KURMANCÎ

rojnameya taybetî ya Enstîtuya kurdî ya Parîsê li ser pirsên zaravayê kurmancî

Min ev nivîsî ne ji bo sahibrewacan
Belkî ji bo biçûkêd Kurmancan

Ehmedê Xanî
(Sedsala XVII)

## Civîna Wanê Bihara 2011an

Civîna Kurmancî ya 48an di navbera rojên 26.06 – 2.07an de li bajarê Wanê, li bakurê Kurdistanê, li dar ket.

Ji bo koma xebatê ya Kurmancî ev cara yekemîn bû ku dikarîbû delîveyekê bibîne da ku civîna xwe li bakurê Kurdistanê saz bike. Helbet cihê serfirazîyeke mezin e ku li perçeyekî welêt, ku ev nêzîkî 90 salî ye di bin nîrên rejîmeke kurdkuj de dijî, civîneke bi vî rengî pêk bêt.

Li bakurê welêt ber bi nemanê çûna ziman û çanda kurdî, ji milekî ve hewildana rejîmê yên pişaftin û asîmîlekirinê û ji milekî din ve meyla bi rizaya dilê xwe xwehelandin û xweasîmîlekirina Kurdan rewşeke gelekî tehlûke pêşde anîye. Koça zoremilî ya rejîmê, koça ji ber sedemên şer û alozbûna rewşa aborî welê kiriye ku gundî ber bi bajaran yan jî ber bi rojavayê Tirkiyeyê biherikin. Gund nemînin, ne jiyana gundîtîyê û ne jî çand û zimanê kurdî her hîç nemînin.

Mixabin e ku ev rastiyek e. Rastiyeke ku em bi rehetî nikarin bipejirînin. Rastiyek e ku dînamîtekê dixe bin hebûna me û dixwaze rehê li me biqelîne.

Neteweyek li ser çend hêmanên bingehîn payedar dimîne. Yek ji girîngtirînê wan helbet çand û ziman e. Zimanê dê ye, zimanê bav û kalan e.

Ziman ne bi tenê axaftin e, kanîya hizirîn, derbirîn, zanîn û afirandinê ye. Bê ziman ferq nakeve navbera mirov û kerîyên dehbe û heywanan.

Wek millet divê em dest ji stûna ku xanîyê me li ser sekinîye, xwe radigire, venekişînin. Me ku dest jê vekişand, xanî tête xwarê, di ser me de tep dibe. Hingê hûr û gir, bihêz û bêhêz, em hemû di binî de dimînin.

**********

Beşdarên civînê li ser babetên wek navên çûk û gulûgiyayên Kurdistanê, hingiv û mêşvanî û nexweşiyên heywanan xebitîn. Encamên vê civînê li jêrê têne belav kirin.

**Hevalên beşdar:**
Salih Akin (Xerzan) , Mustefa Aydogan (Mêrdîn), Rûken Bagdu-Keskîn (Stenbol), Rojen Barnas (Diyarbekir), Lezgînê Çalî (Barzan), Ehmedê Dirihî (Çewlik), Xalidê Hekarî (Hekarî), Newzad Hirorî (Dihok), Hemîd Kiliçasalan (Mêrdîn), Eyûb Kiran (Qerejdax), Cemal Onursal (Cizîr), Têmûrê Xelîl (Rewan), Reşo Zîlan (Agirî).

**Têbînî:** *Civîn bi temamî bi îmkanên Enstîtuya Kurdî ya Parîsê li dar ketiye û wek prensîp bi hîç awayekî bi kom û hêzên siyasî re peywendîdar nebûye.*

## Termsaziya pizişkî bi kurdî

**Lezgînê ÇALÎ**

Li destpêkê, dibê bibêjim ku heker termsazî ji bo Kurdan (an her neteweyeke dî) zehmet be, ji ber wê ye ku zanistên hewcedarên wan terman di nav Kurdan de peyda nebûne. Lewma jî termên wan zanistan nîne. Ku ew zanist peyda nebibin jî, yek ji sebeban nebûna hewcedariya bi wan an hestnekirina wê hewcedariyê bûye.

Dema diyarkirina tixûbên gundan û zeviyan pêdivî bûye, Kurdan term ji bo her cureyekî berzî û nizimî yên erdî afirandine. Ku weha nebûya, şerên eşîran û malbatan li ser aqarên gundan û tixûbên zeviyan dê dijwartir bûbûna. Lê, Kurd ne hewcedarên cidakirina oksîjen û hîdrojena avê bûne. Wan bê haydarbûna ji hebûna hîdrojen û oksîjenê jî ava sar û hûnik a kaniyên zozanên welatî vedixwar... Karekî wan bi herduyan nebû. Ku ava rûbarî gehiştiba pezê wan besî wan bû.

Kurdan gelek nav ji bo pez û heywanên dî yên kedî hene. Lê, ji ber wê ku nexweşiyên wan jî ne zêde giring bûn, navên nexweşiyên wan ne wekî navên polandina (senifandina) wan berfireh bûne. Hemî temenên pez û dewaran navekî xwe heye. Hemî rengên hirî û mûyê heywanan (ji bo veniyasîna wan di keriyan de, û ji bo rêgirtina li ber şerên mumkin) navên xwe hene. Lê, navên nexweşiyan ne ewqas zêde ne.

Hemî tiştên wekî van babetan girêdayî rewşa abûrî-civakî-siyasî-hizrî ya civatan in. Mixabin ku Kurdan fîzîk û kîmya çênekirin. Evro jî, ji ber ku hukûmet û dewleteke Kurdan ya xweser nîne, Kurd zêde hewcedarên hebûna wan terman bi zimanê xwe nînin. Ew term hemî ji zimanên serdest dihên. Kurdî hêşta zimanê berî sedsala 20ê ye. Ji xwe nîne ku moderntirîn stranên stranbêjên kurd hêşta li ser kanî, bejn û bisk û cerikan dihên strandin.

Ku civîn û saziyên wekî vê Kurmancîyê hebin jî, ji xemxwerî û dûrbînî ya hîmdanerên wan e, bi rastî ne ji hewcedariya jiyana evro ya Kurdan.
Ez dê li destpêkê piçekê behsa termên heyî yên kurdi di warê nexweşiyên heywanan de bikim. Hûn dê bibînin ku hejmara wan ne gelek e (hindek ji wan di hejmarên berê yên Kurmanciyê de hatine ku em dubare nakin). Paşî, dê piçekê li ser binemayên giştî yên termsaziya zanistî bisekinim û têbînî yên xwe di warê pratîkê de nîşa we bidim. Li dawiyê, dê behsa termsaziya zanistî ya pizişkî (scientific medical terminology) bikim.

## Navên hin nexweşiyên heywanan

**Amadekar: Lezgînê ÇALÎ
û Rûken BAGDU-KESKÎN**

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| berêş: memikkulî, guhanreşî, bi guhana ketin, lemreşî | meme iltihabı | mastite, mammite | mastitis |
| berxwirkî | iri ve büyük kuyruklu koyunların yazın sıcağından ötürü kuyruk altlarının pişik olması | irritation due à la chaleur d'été, sous la queue des moutons à queue grasse | a rash under the tail of the large tailed sheeps during the summer heat |
| bêvîrî | tifo | typhoïde, fièvre typhoïde, | typhoid fever |
| birîna reş: xiştik | şarbon | charbon, anthrax | anthrax |
| bi simbilê (simil) ketin | fazla başak yemekten hastalanma | tomber malade pour avoir mangé trop d'épis de blé | sick from eating too much ears of corn |
| bi nefelê (/gîya) ketin | fazla yonca (/ot) yemekten hastalanma | tomber malade pour avoir mangé trop de trèfle (ou de foin) | sick from eating too much clover and hay |
| ceh lê ketin | arpalama | tomber malade pour avoir mangé trop d'orge | sick from eating too much barley |

| | | | |
|---|---|---|---|
| çengalkurm | anklostoma | ankylostome | ancylostoma |
| çiyayî | mera hastalığı | entérotoxémie | enterotoxemia |
| çor | sığır vebası | peste bovine | cattle plague |
| davekurm | kıl kurdu | oxyure | pinworm |
| defiyan | midede gaz toplanması | flatulence | flatulence, intestinal obstruction |
| didanok | keratinleşme | kératinisation | cornification |
| êşa zirav: jana zirav | verem | tuberculose | tuberculosis |
| gocî: kulekî, lengî | aksaklık | boiterie | limp |
| harî | kuduz | rage (la) | rabies |
| hilbirîn | mastitis izleri | marques de mammite, ou mastite | scars of mastitis |
| marik | askaris | ascaris | ascaris |
| nikilreşî, dimşînk | bir tür tavuk hastalığı | un type de maladie aviaire | a type of chicken disease |
| nînok | burun delikleri spazmı | spasmes des naseaux | spasm of nostrils |
| parîdirryayî | avurt divertikülü | diverticule buccal | buccal diverticula |
| pehnekurm, şirîtekurm | tenya | ténia | tape worm |
| pembilokiyan, pendefokiyan | mantar enfeksiyonu | infection fongique | fungusis (fungal infection) |
| persîv | nezle | rhume | influenza |
| pindikî | tavuklarda kanat altlarının bitlenmesi | poux sous les ailes des poulets | lice in underside of chickens wing |
| qeremok, qerimok | beyaz kas hastalığı | maladie du muscle blanc, dystrophie musculaire enzootique | white muscle disease WMB |
| qotik | hayvan vebası | peste animale | animal plague |
| rîxoyî, hêlebûn, vîjikî, virikî | ishal | diarrhée animale | animal diarrhea |
| som, kunêr, qunêr, kînor | apse | abcès | abscess |
| stewrî | kısırlık | stérilité, infécondité | sterility |
| taya nobeyê | malarya | malaria | malaria |
| taya vegerr, taya sarormî | tekrarlayan ateş | fièvre récurrente | recurrent fever |
| tepek | sara hastelığı | épilepsie | epilepsy |
| tepekî | epileptik | épileptique | epileptic |
| ûrgepîs | fıtık | hernie | hernia |
| veçirikîn | çırpınma | convulsion | convulsion |
| xerab ketin | düşme sonucu hayvanın kurtulması zor bir duruma girmesi | suite à une mauvaise chute, être mal en point | as a result of falling the animal is unwell |
| xesandin | enemek | castration | castration |
| xesandî | enenmiş | castré | casterated |
| korazî | göz kapaklarının kısılmasına neden olan ve görme gücünü zayıflatan bulaşıcı bir hastalık | maladie infectieuse des paupières affectant la vision | an epidemic disease which cutbacks of the eyelids and causes to weakness vision |
| req | küçük akciğer kelebeği | douve de Chine | opisthorchis sinensis |
| heb, xwirî, rîş | koyunlarda çiçek hastalığı | clavelée, hydatide | hydatid |
| pişikbelekî, pişikziwa | akciğer enfarktüsü | infarctus pulmonaire | pulmonary infarction |
| teyrok lêxistin | deve çatlaması, devenin çatlayarak ölmesi | mourir d'épuisement (pour un chameau) | die of exhaustion (for a camel) |
| pîrik lêxistin, elk, pîrelk | albasma | fièvre puerpérale | puerperal fever |
| têdehatin, pêdehatin<br>bi tê de hatin, pê de hatin | ani ölüm (atlar için)<br>beddua olarak 'allahından bulmak', 'ölesice' anlamında | mort subite (pour les chevaux en particulier)<br>que Dieu te punisse ! (malédiction) | sudden death (esp. for horses)<br>may Allah punish you! (a curse) |
| ziman hatin | sığırlarda ağız ve dil iltihabı | stomatite papuleuse bovine, inflammation de la bouche et de la langue chez les bovins | bovine papular stomatitis, a bovine inflammation of mouth and tongue |
| pêwirî, arsimî | saman nezlesi | rhume des foins, allergie | hay fever, allergy |
| çêre xezal dibe | otların sararmaya başlaması | début de jaunissement des herbes | the start of the grass to turn yellow |
| tevek (tewek) | şap (hastalığı) | fièvre aphteuse | foot and mouth disease |
| gurrî | uyuz | gale | scab (in cattle) |
| canzerî | bir tür sarılık hastalığı | forme de jaunisse | tepto, kind of jaundice |
| beravêtin, jiberavêtin, jiberçûn | düşük, düşük yapma | fausse couche | miscarry |
| ji ber avêtin, ji ber çûn | düşük yapmak | faire une fausse couche | to have a miscarriage |
| jiberavêtî | düşük yapmış | qui a fait une fausse couche | the animal which has had a miscarriage |
| teliqîn | doğurmak (köpekler için) | mettre bas (pour les chiens) | to give birth (dog) |
| gonxwarin, goxwarin | döllenme, çiftleşme | insémination, accouplement | insemination, mating |
| gonxwarî | döllenmiş | inséminée, fécondée | inseminated, impregnated |
| bi êşê ketin, şov, şof | salgına yakalanmak | être frappé par une épidémie | suffering from an epidemic disease |
| şov, şof | salgın hastalık | épidémie | epidemic, contagion |
| kurm pê ketin | kuyrukları ağırlaşan koyunların arkalarından kurtlanmaları | être infesté de vers (en part. dans la queue chez les moutons) | be suffered from worms in taol as a result of heavy tail (sheep) |
| bi spiya ketin | bitlenmek | être infesté de poux | to get infested with lice |
| bi rişka ketin | sirkelenmek | être infesté de lentes | to become infested with nits |
| guhan kirin | meme şişmesi | gonflement des pis | swelling of udders |
| ketin kurkê, qurp (qup) ketin | kuluçkaya yatmak | incuber, couver (une maladie) | to incubate |
| dim | gaga | bec | bill or beak |
| lem berdan | memeye birkaç gün önceden süt dolmasıyla doğumun yaklaştığı belirtisi | avoir les mamelles pleines de lait quelques jours avant la mise bas | a few days before the parturition breast fills with milk and this signs the approaching of birth |
| rûv pê ketin, zî daketin, zî derketin | doğumdan önce dış üreme organının ıslanması | mouillage des organes externes de reproduction avant la mise bas | wetting of the external reproductive organs before birth |
| moz kirin | sığır sineklerinin ısırması sonucu sığırların çıldırırcasına kaçışmaları | (pour le bétail) se débattre suite à des piqures d'insectes | cattle fly into a rage as a result of biting pale giant horsefly |
| gewgewe | büge, bügelek, nokra sineği | varron | warble fly |
| şêz | köpek piresi | puce du chien | dog flea |
| qelpe, qerpol | çaput | chiffon | tatter, cloth patch |
| pizgur | eski püskü | usé, défaillant, minable | worn out, shabby |
| li aziyê man | ortada kalmak | restrer sans protection, rester à l'écart | to be left without protection, to be excluded |
| tar, tara mirîşkan | tavukların kümeslerde tünedikleri ağaç | perchoir de basse-cour | the roost in poultry-house for sleeping on it |
| qelpekirina bizinan: ji ber ku boçika bizinan piçûk e zivistanan zîya wan li aziyê dimîne û heywan ji wê derê sermayê digire û nexweş dikeve. Ji bo ku nexweş nekevin, paçek (kemek) ji paş ve bi mûyê wan ve tê dirûtin û qulik tê niximandin. Ji vê re dibêjin "bizinê qelpe dikin". | keçilerin kuyrukları kısa olduğundan kışları üreme organları açıkta kalır ve hayvan buradan soğuk alıp hastalanır. Bunu önlemek için hayvanın arkasını bir bezle kapatıp bezi hayvanın kıllarıyla dikerler. Bu işleme "bizin qelpe kirin" denir. | comme la queue des chèvres est courte, en hiver leurs organes génitaux sont exposés au froid. Pour éviter ce problème, on met un chiffon (qelpe) sur cette partie et on le coud avec ses poils. | the goats usually have a short tail, their reproductive organs are exposed in winter to cold and therefore they become ill. To avoid this, close the hindquarters with a cloth (qelqe) and sewn with his hair. |

# Hingiv û mêşvanî

Amadekar: Salih AKIN

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| **hingiv û celebên hingivan** | **bal ve bal çeşitleri** | **miel et variétés de miel** | **honey and sorts of honey** |
| hingiv, hingivîn | bal | miel | honey |
| şîremêş | arı sütü | gelée royale | royal jelly |
| hingivê zeyiyan | oğul balı | miel vierge, premier miel d'un nouvel essaim | virgin honey, the first honey from a fresh swarm |
| hingivê makê | kara bal | miel produit sur des vieilles cires | honey produced on old beeswax |
| hingivê dobe, hingivê helandî, hingivê parzinandî | süzme bal | miel filtré | filtered honey |
| hingivê şaneyan (şane), hingivê şanikan | fenni petek balı | miel en rayon | comb honey |
| şane, şanik | petek, bal peteği | alvéole, rayon | alveolus, honeycomb |
| sinît, sanît | eğir | propolis | propolis |
| | | | |
| **hingivê xelekan** | **kasnak, halka, karakovan balı** | **miel, pain de cire** | **honey, wax loaf** |
| nanika hingiv | arı dalağı | rayon de miel | honeycomb |
| lêxistina kaşaxî | çapraz petek örme | production d'alvéoles transversales | production of transverse cells |
| lêxistina nankî | yuvarlak petek örme | production d'alvéoles rondes | round cells production |
| lêxistina şûrkî | uzunlamasına petek örme | production d'alvéoles longitudinales | production of longitudinal cells |
| mêşvan | arıcı | apiculteur | beekeeper |
| mêşvanî | arıcılık | apiculture | beekeeping |
| | | | |
| **kewar û alavên wê** | **kovan ve aletleri** | **la ruche et ses matériels** | **the hive and its materials** |
| kewara mêşan, kewar, kewarmêş, gurbik | kovan | différentes sortes de ruches | hive |
| kewara axînî | toprak kovan | ruche en terre | clay hive |
| kewara darînî | fenni kovan | ruche en bois | wooden hive |
| mêşedan, mêşildan, paşedîn, dinbaşk | arılık, kovanlık | abri de ruche | shelter of hives |
| derxûn | kovan kapağı | couvercle (de la ruche) | (hive) cap |
| qalib, çita | petek çıtası | cadre (d'une ruche) | frame (of a hive) |
| zimanok | sürgü | targette | bolt |
| dûdank | arıcı körüğü | enfumoir | bee smoker |
| makîneya dobê: makîneya parzinandinê | süzme makinası | filtre mécanique, tamis | honey filter |
| | | | |
| **celebên mêşan** | **arı çeşitleri** | **espèces d'abeilles** | **bee species** |
| mêş, moz, mêşhingiv, mêşa hingivî, mêşa hingvînî (lat : *apis mellifica*) | arı, | abeille | honey bee make, |
| heng, hing | ana arı | reine des abeilles | queen bee |
| mêşên mêşinî | uysal arı | abeilles douces | non-aggressive bees |
| mêşên bizinî, mêşên no | saldırgan arı | abeilles agressives | aggressive bees |
| mêşên karker, temen kurt in, dibin 35-40 rojî | işçi arı | abeilles ouvrières | worker bee |
| ferx | oğul | abeilles qui viennent de naître | young bees |
| pîrox (hingiv çênakin) | eril arı | faux-bourdons | drone |
| | | | |
| **xwarina mêşan** | **arı yemleri** | **alimentation des abeilles** | **bee foods** |
| kek: ji hevîr, hingiv û şîr çêdikin | "kek": hamur, bal ve sütten yapılır | pâte de farine, de miel et de lait | mixture with dough, honey and milk |
| şîreya mêşan | arı şurubu | sirop nutritif (nutriment) | syrrup for feeding bees |
| şerbeta mêşan : xwarina mêşan ya ji bo zivistanê, ji dims yan jî şekir çêdikin | arılar için pekmez veya şekerden yapılan bir kış yemeği | nourriture hivernale faite de jus de raisin bouilli ou de sucre | winter food made from boiled grape juice or sugar solution |
| | | | |
| **îdyom** | | | |
| hingivbirîn | bal hasadı | la récolte du miel | the honey harvest |
| hingiv birîn | bal hasad etmek | récolter le miel | to harvest honey |
| mêş hewandin | arıları içeri almak (kış soğuğundan korumak için) | abriter les abeilles afin de les protéger du froid de l'hiver | to protect bees from winter cold |
| hingiv xwe li derxûnê daye | bal kovanından taşmak üzere | la ruche est tellement pleine que le miel va déborder | the hive is so full that the honey will overflow |
| xumîna mêşan | arılar uğulduyor | bourdonnement des abeilles | humming of bees |
| firîna ferxan | arıların ilk uçuşması | premier vol des jeunes abeilles | first flight of young bees |
| devê kewarê qitab kirin | kovana eklenti yapmak | agrandir la ruche | to extend a hive |
| şilxe < mêş bûne şilxe > | sürü | essaim | swarm |
| balote: hewm, goşî < mêş dibine balote > | arı yığılımı | colonie d'abeilles | the pile of bees |


*Dûdank*


*Çita*


*Gurbik*


*Makîneya dobê*


*Şanik*


*Derxûnê kewarê*


*Kewarmêşa axînî*


*Kewarmêş*


*Mêşedan*


*Maske*

# Navên çûkan

**Amadekar: Fikret ERTEK**
**Rûken BAGDU-KESKÎN**

*Piranîya navan ji Deşta Gewra ye*

| kurdî | latînî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|---|
| şilfo | *Gavia arctica* | kara gerdanlı dalgıç | plongeon arctique | arctic loon |
| berraşe | *Alauda arvensis* | tarlakuşu | alouette des champs | skylark |
| berşe | *Melanocorypha-calandra* | boğmaklı toygar | alouette calandre | calandra lark |
| seravêrik, silavzêrik, sûravêlk | *Tadorna ferruginea* | angıt | tadorne casarca | ruddy shelduck |
| betê vîzvîzok | *Tetrax tetrax* | mezgeldek | outarde canepetière | little bustard |
| bûmê palaxê (bûm) | *Bubo bubo* | puhu | grand-duc d'Europe, | eagle owl |
| kew (dîk), nêrekew | *Alectoris chukar* | kınalı keklik | perdrix choukar | chukar |
| vitik (dîk û marî) | *Ammoperdix griseogularis* | kum kekliği | perdrix si-si | see, see partridge |
| kullo, pînês, tîntîn | *Galerida cristata* | tepeli toygar | cochevis huppé | crested lark |
| mirîşka avî | *Fulica atra* | sakarmeke, saz tavuğu | foulque macroule | common coot |
| xiloçîzik | *Vanellus vanellus* | kızkuşu | vanneau huppé | nothern lapwing |
| pit, boqsor | *Cercotrichas galactotes* | çalı bülbülü | agrobate roux | rufous bush robin |
| bet | *Otis tarda* | toy | outarde barbue | great bustard |
| çixik | *Scolopax rusticola* | çulluk | bécasse des bois | eurasian woodcock |
| zirzûl | *Apus melba* | ak karınlı ebabil | martinet à ventre blanc | alpine swift |
| şalûr | *Merops apiaster* | arıkuşu | guêpier d'Europe | bee-eater |
| cîq | *Sturnus vulgaris* | sığırcık | étourneau sansonnet | starling |
| dîkê avî | *Ceryle rudis* | alaca yalıçapkını | alcyon pie, martin, pêcheur pie | pied kingfisher |
| dîksilo, silêmanê dunukil, dodo tirşik, (dodo) | *Upupa epops* | ibibik | huppe fasciée | hoopoe |
| çikê bozan | *Oenanthe isabellina* | boz kuyrukkakan | traquet isabelle | ısabellina wheatear |
| axê çika | *Oenanthe hispanica* | kara kulaklı kuyrukkakan | traquet oreillard | black-eared wheatear |
| çûçika zer | *Emberiza melanocephala* | kara başlı çinte | bruant mélanocéphale | black-headed bunting |
| tatilbarik, qerebeşk | *Phalacrocorax carbo* | karabatak | grand Cormoran | great cormorant |
| qarît, barît, sûsik, sûsk, remêl, rimêle, hevêrde, kutefir, qitik | *Coturnix coturnix* | bıldırcın | caille des blés | common quail |
| şeşxapînok, şivanxapînk, şivanxapînok, şibxapînk, kilkehelsîne, xapxapok, çûka şivanan | *Caprimulgus europaeus* | çobanaldatan | engoulevent d'Europe | nightjar |
| şînordek, werdaka serkesk | *Anas platyrhynchos* | yeşilbaş | canard colvert | mallard |
| qazê çolê | *Anser anser* | boz kaz | oie cendrée | greylag goose |
| mastok, çûçika serbimast | *Motacilla alba* | ak kuyruksallayan | bergeronnette grise, hochequeue grise | pied wagtail |
| teyrê boyax | *Coracias garrulus* | gökkuzgun | rollier d'Europe | roller |
| turlî, tirlî | *Burhinus oedicnemus* | kocagöz | oedicnème criard | stone curlew |
| oxlî (yê kew), şaqavî, şaq, şîneşaho, qoxan, wîq | *Ardea cinerea* | gri balıkçıl | héron cendré | grey heron |
| qertelê piştbicil | *Neophron percnopterus* | küçük akbaba | vautour percnoptère | egyptian vulture |
| qumrî, tivîlk | ***Streptopelia decaocto*** | kumru | tourterelle turque | eurasian collared dove |
| qijika boçhelewî | *Pica-pica* | saksağan | pie-bavarde | magpie |
| kevotker(r)ik | *Streptopelia turtur* | üveyik | tourterelle des bois | turtle dove |

| Yên wêneyên wan nehatine peydakirin | Resimleri bulunamayanlar | Dont les images n'ont pas été trouvées | Pictures are not found |
|---|---|---|---|
| **Bûka mişk:** çûkeke pir piçûk e, di nava dirîyan de tenê dike pirpir. Bilind nafire, zûka ji şitlekê difire şitleke din. Rengê wê qehweyîyê bi zerayî ve ye. | Çok küçük bir kuş olup çoğunlukla fundalıklarda yalnız uçuşurlar. Yüksek uçmazlar ve daldan dala çabuk uçarlar. Rengi sarıya çalar kahverengindedir. | Un tout petit oiseau qui vole comme s'il rebondissait entre les buissons. Il ne vole pas haut, il se déplace vite d'une branche à l'autre. Il a une couleur d'un brun-jaunâtre. | A very small kind of birds, fly often alone in the bushes. Fly very quickly from branch to branch but not highly. They have a brown yellow color. |
| **Werdeka e'bûrî:** dişibe mariya werdeka serkesk. Lê rengê wê hinekî tarîtir e û jê piçekî piçûktir e. | Yeşilbaşlı ördeğin dişisine benzer. Fakat ondan biraz daha küçük olup rengi de daha koyudur. | Espèce de canard qui ressemble à la femelle du canard colvert en plus foncée et plus petit que celle-ci. | It is very similar to the females of the green-headed duck, slightly smaller and with a darker color. |
| **Werdeka cûrre:** dibe ku li Kurdistanê werdeka herî piçûk be. Rengê wê li ser rengê mariya werdeka serkesk e. Masiyan pir dixwe. | Kürdistan'daki en küçük ördek türü olabilir. Rengi yeşilbaş ördeğin rengine benzer. Çok balık yer. | Espèce de canard sans doute la plus petite du Kurdistan. Sa couleur ressemble à celle de la femelle du canard colvert. Il mange beaucoup de poisson. | It may be the smallest duck species in Kurdistan. Its color is similar to the color of mallard ducks. Eats mostly fish. |
| **Kuloyê piçûk:** kulikê vî kuloyî tune ye û bi piranî li nêzîkî çeman digere. | Bu toygar küllahsızdır ve çoğunlukla ırmak kenarlarında yaşarlar. | Espèce de cochevis sans huppe qui vit aux bords des rivières. | Lark without a cron living on the river edges. |



Şilfo,
*Gavia arctica*



Berraşe,
*Alauda arvensis*



Berşe,
*Melanocorypha-calandra*



Seravêrik, silavzêrik, sûravêlk,
*Tadorna ferruginea*



Betê vîzvîzok,
*Tetrax tetrax*



Bûmê palaxê (bûm),
*Bubo bubo*



Kew (dîk), nêrekew,
*Alectoris chukar*



Vitik (dîk û marî),
*Ammoperdix griseogularis*


Kullo, pînês, tîntîn, *Galerida cristata*


Mirîşka avî, *Fulica atra*


Xiloçîzik, *Vanellus vanellus*


Pit, boqsor, *Cercotrichas galactotes*


Bet, *Otis tarda*


Çixik, *Scolopax rusticola*


Zirzûl, *Apus melba*


Şalûr, *Merops apiaster*


Cîq, *Sturnus vulgaris*


Dîkê avî, *Ceryle rudis*


Dîksilo, silêmanê dunukil, dodo tirşik (dodo), *Upupa epops*


Çikê bozan, *Oenanthe isabellina*


Axê çika, *Oenanthe hispanica*


Çûçika zer (dîk), *Emberiza melanocephala*


Çûçika zer (marî), *Emberiza melanocephala*


Tatilbarik, qerebeşk, *Phalacrocorax carbo*


Qarît, barît, sûsik, sûsk, remêl, rimêle, hevêrde, kutefir, qitik, *Coturnix coturnix*


Şeşxapînok, şivanxapînk, şivanxapînok, şibxapînk, kilkehelsîne, xapxapok, çûka şivanan, *Caprimulgus europaeus*


Şînordek, werdaka serkesk (dîk), *Anas platyrhynchos*


Qazê çolê, *Anser anser*


Mastok, çûçika serbimast, *Motacilla alba*


Teyrê boyax, *Coracias garrulus*


Qijika boçhelewî, *Pica-pica*


Turlî, tirlî, *Burhinus oedicnemus*


Oxlî (yê kew), şaqavî, şaq, şîneşaho, qoxan, wîq, *Ardea cinerea*


Qumrî, tivîlk, *Streptopelia decaocto*


Qertelê piştbicil, *Neophron percnopterus*


Kevotker(r)ik, *Streptopelia turtur*

# Flora Kurdistanê - III -

**Amadekar: Ehmedê DIRIHÎ**
**Eyûb KIRAN û Xalidê HEKARÎ**

| kurdî | latînî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|---|
| kîrê keran (kurdan) | *eminium* | yilan yastığı | vivace tubéreuse | eminium |
| axbandir, hintirş, 'emtişk | *ornithogalum narbonense* | ak baldır, kurt soğanı | ornithogale de Narbonne | Narbonne star -of-Bethlehem |
| kirkor | *echinophora teniufolia sibthorpiana* | peynir otu | échinophore à feuilles tenues | prickly parsnip |
| benga (benc) reş | *hyoscyamus-niger* | siyah banotu | jusquiame noire | black henbane |
| benga (benc) zer | *hyoscyamus aureus* | sarı banotu | jusquiame dorée | yellow henbane |
| şilingo, êmdî | *cucumis meld l.* | Mardin acuru | variété de concombre | cucember specie |
| giyakulik | *gladiolus sp* | glayör | glaïeul | gladiolus |
| şimşîr | *gladiolus illyricus* | kuzgun kılıç çiçeği | glaïeul d'Illyrie | Illyrian gladiolus |
| bermalxatûn | *lathyrus roseus* | mürdümük | pois-de-senteur vivace | sweet pea |
| kirkor, kerkol | *prangos ferulacea* | bir çakşır türü | apiaceae | apiaceae |
| gongil, çavbeloq | *centaurea calcitrapa* | çoban kaldıran, timur dikeni | chausse trappe, chardon étoilé | purple starthistle, red starthistle |
| giyagenî | *fritillaria persica* | acem terslalesi | fritillaire de Perse | persian fritillaria |
| pêcanik, kersim, şivanok | *tussilago farfara* | öksürük otu | tussilage, pas- d'âne | coltsfoot |
| nêrebend | *scorzonera incisa* | bir yemlik türü | variété de scorsonère | a sort of scorzonera |
| gîyareşk, hengemînok | *lamium album* | beyaz ballıbaba | lamier blanc, ortie blanche | white deadnettle |
| qaqulok, mostikvaş | *hordeum bulbosum* | yumrulu arpa | orge bulbeuse | bulbous barley |
| pêqijak | *chenopodium aristatum* | kazayağı | chénopode | wormseed |
| qermox, qeremox, zirişk | *berberis vulgaris* | diken üzümü | épine-vinette | common barberry |
| havazge | *arnebia densiflora* | eğnik | de la famille des boraginacées | boraginaceae |
| alala sor- mele osman | *phelypaea tournefortii* | ayı parmağı | variété de tulipe | tulipa julia |
| alal | *phelypaea* | bir ayı parmağı türü | tulipe, variété de tulipe | phelypaea |
| alala zer, mele osman | *phelypaea* | bir ayıparmağı türü | tulipe jaune | phelypaea |
| kulîlka qewanê | *leucanthemum-vulgare* | beyaz ay papatyası | marguerite commune | oxeye daisy |


Kîrê keran (kurdan),
*Eminium*


Axbandir, hintirş, 'emtişk,
*Ornithogalum narbonense*


Benga (benc) reş,
*Hyoscyamus-niger*


Benga (benc) zer
*Hyoscyamus aureus*


Şilingo, êmdî,
*Cucumis meld l.*


Giyakulik,
*Gladiolus sp*


Şimşîr,
*Gladiolus illyricus*


Bermalxatûn,
*Lathyrus roseus*


Kirkor, kerkol,
*Prangos ferulacea*


Gongil, çavbeloq,
*Centaurea calcitrapa*


Giyagenî,
*Fritillaria persica*


Pêcanik, kersim, şivanok,
*Tussilago farfara*


Nêrebend,
*Scorzonera incisa*


Gîyareşk, hengemînok,
*Lamium album*


Qaqulok, mostikvaş,
*Hordeum bulbosum*


Pêqijak,
*Chenopodium aristatum*


Qermox, qeremox, zirişk,
*Berberis vulgaris*


Havazge,
*Arnebia densiflora*


Alala sor - mele Osman,
*Phelypaea tournefortii*


Alal,
*Phelypaea*


Alala zer, mele osman,
*Phelypaea*


Kulîlka qewanê,
*Leucanthemum-vulgare*

KURMANCÎ
MAGAZINE LINGUISTIQUE KURDE, supplément du Bulletin de liaison et d'information
© INSTITUT KURDE DE PARIS, 106, rue La Fayette, 75010 Paris - France, Tel. : 00 33 (0)1 48 24 64 64, *www.fikp.org*
*Directeur de la publication :* **Reşo ZÎLAN,** *Réalisation :* **M. HASSAN, S. ILITCH, Y. KARADEMIR**